# Nerîna Lîderan



Mistefa Hicrî: **“Metirsiya DAÎŞ’ê li ser Komara Îslamî a Îranê nîne”.**



Muslim: **“Civîna Riyazê ne di berjewendiya gelê Sûriyê de ye”.**



Erdoxan: **“Tirkiyê 30 hezar esker li dijî PYD’ê amade kiriye”.**



Elîekber Wilayetî: **“Esed hêla sor ya Îranê ye”.**

# Îsma’îl Bêşikçî: Take rêya bidestxistina mafên Kurdan, ragehandina dewleta Kurdî ye

**Kurdistanmedi: Şandeke PDKÎ di rêûresma avakirina Nawenda Rewşenbîrî ya Îsma’îl Bêşikçî, kesatiyê naskirî ê Turk, li bajarê Hewlêrê de pişikdarî kir.**




Roja Çarşemî berwarê 4’ê Sermawez a sala 1394’an a Rojî, şandeke PDKÎ bi serperestiya Kerîm Perwîzî endamê Deftera Siyasî yê PDKÎ, di rêûresma avabûna nawenda rewşenbîrî ya Îsma’îl Bêşikçî, ku li salona Pêşewa ya bajarê Hewlêrê de hate lidarxistin, beşdar bûn.

Piştî ku rêûresmê bi sirûda netewî ya “Ey Reqîb” dest bi karê xwe kir, nûçegehanê Kurdistamedia yê di cihê rêûresmê de ragehand ku, rêûresm bi pişikdariya hejmareke berçav ji partiyên Kurdistanî û kesatiyên siyasî û edebî ên Kurdistanê birêve çû.



Di despêkê de “Îbrahîm Gurboz” serokê Enistîtoya Bêşikçî çend gotinek pêşkêş kirin û têde ragehand ku Enistîtoya Bêşikçî wê di warên wergêran a pirtûkên Kurdî ya Soranî bo ser Kurmancî û berewajî ji Kurmancî bo ser Soraniyê, çap û belavkirina pirtûkan, komkirina nivîskar û torevanên Kurdan û herweha nasandina kiltura Kurdan bi cîhana derve çalakiyan dike. Di beşek din a gotinên xwe de navbirî eşkere kir ku beşa malî ta enistîtoyê ji aliyê “Ye’qûb Sût” ve hatiye dabînkirin û herweha tewahiya kesên ku di enistîtoyê de kar dikin, xwebexş in.

Pişt re çend kesatiyên siyasî û edebî ên Kurd derheq bi avabûna Nawenda Rewşenbîrî ya Bêşikçî li bajarê Hewlêrê çend gotinek pêşkêşî beşdaran kirin.
Her di vê derheqê de Newzad Hadî yê parzêgarê Hewlêr, ev pêngava wezareta Lawan û Rewşenbîriya Hikûmeta Herêma Kurdistanê bilind nirxand û raygeyand ku, girîngîdana bi hizr û raman û edeb û kilrûta Kurdî, dibe sedema vê yekê ku îro rojê netewa me pitir li cîhanê bê naskirin.

Di beşa din a rêûresmê de serokê akademiya zimanê Kurdî çend gotinek pêşkêş kirin û têde tekez liser vê kiri ku em hemû gerek hewil bidin ku zimanek tevalî ya Kurdî bo nivîsandinê bê damezirandin û di bin bandora tu hêz û aliyeke siyasî de nebe û, eva ji bi xwe hêsankariye bo avakirina dewleta Kurdî.

Di dawiyê de Îsma’îl Bêşikçî kesatiya siyasî û civaknas û dostê gelê Kurd, baseke dewlemend liser ziman û edeba Kurdî û bandora wê liser hizra netewî pêşkêş kir.
Bêşikçî ragehand ku di her welatekê de piştî hêza leşkirî, hêza ziman û kultûr e, lewra gerek netewa Kurd jî pitir girîngiyê bide ziman û edeba Kurdî.

Navbirî di doma gotinên xwe de ragehand ku gerek em bi xwe mafê qedera xwe diyarî bikin û, hikûmeta Herêma Kurdistanê jî gerek ji rêya danûstana tevî dewleta Bexdayê mafê xweseriya xwe bisitîne, jiber ku eva mefeke rewa ya gelê Kurd e û, hekî dewleta bexdayê jî vê mafê nede, hewce ye ku hikûmeta Bexdayê yek alî û bi tenê xweseriya xwe ragehîne.

Navbirî herweha got ku rêya herî baş ev eku YNK û PDK weke du hêzên serek ên Kurd li Başûrê Kurdistanê careke din lihevkirina sitratejîk ya di navbera xwe de derxin hol û liser mijara xweseriya Kurdan lihev bikin. Jiber ku take rêya sitandina mafên Kurdan, ragehandina dewleta xweser e.

Di dawiyê de Bêşikçî kêfxweşiya xwe derheq bi avabûna vê nawenda rewşenbîrî nîşan da û hêvî xwest ku di pêşerojê de pitir bikare di warê edeb û kiltûr de xizmetê bi gelê Kurd bike.

Bêşikçî jidyîkbûya 7’ê January ya sala 1939’an a Zayînî ye di malbateke Turk de hatiye dinê. Navbirî take civaknasê ne Kurde ku hemû jiyana xwe di pêxema xizmeta bi gelê Kurd re terxan kiriye.

# Ayişe Qadirî:
## “Bo min tewahiya serkevtinên partiya min dikevin nava cixza bîreweriyên xweş ên min de, û wê di elboma jiyana min de her bimînin”.

**H: Jîla Mustteicir**



Bi rastî awareyî, malwêranî, jidestdana ezîzan, xerîbî, keser, xem, kovan û çendîn mijarên din, dem û roj û demsal û salên jiyana mirovên xebatkar tijî dikin. Her yek ji wan mijaran jî bi nobeta xwe û di cihê xwe de û bi qasî xwe, giraniyê dixe ser milê mirovên xebatkar, û porên reş ên wan di demeke kêm de Spî û kal dikin. Eva serpêhatiya wan jinên xebatkar e ku serbarê dîtina wan hemû êş û elemên ser rêya şoreşê, lê dîsan jî bi hêvî, û qahîm tevlî refên partiyên xwe dibin, û bona bidestxistina mafên xwe yên mirovî û netewî, berxwe didin.

Ayişe Qadirî jî yek ji wan jinên xebatkar e ku, serbarê vê ku xelkê Kurdistana Başûr e, lê tewahiya temenê xwe, serbarê serpêhatiya xwe ya pir ji êş û jan, di nava Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê de derbaz kiriye.

Ayişe Qadirî keça Qadir sala 1973’an (30.09.1352) li bajarokê Seng-eser a Kurdistana Başûr di malbateke nîştimanperwer de hatiye dinê.

Ayişe Qadirî di despêka hevpeyvîna xwe de, çawaniya nasyarî tevî PDKÎ û herweha derheq bi jiyana xwe ya hevpar di nava refên PDKÎ de weha dipeyve: “Bi sedema vê ku xalên min di nava refên pêşmergên PDKÎ de xebat dikirin, dikarim bêjim ku her di zarokatiya xwe de ez tevî siyasetên PDKÎ nasyar derketim, jiber ku her ro min pêşmerge û kadrên PDKÎ didîtin û rojane me bidûreçûn bo karûbar û nûçeyên Hizba Demokrat dikirin. Her eva bû sedem ku Hizba Demokrat hemû jiyan û bûyîna min dagîr bike û bê PDKÎ ez hest bi bûyîna xwe nekim.

Min di nava PDKÎ de du caran jiyana hevpar ava kir. Cara yekemîn tevî pêşmergeyekî Hizba Demokrat bi navê, “Qadir Hesenpûr” ku fermandarê “Lik” bû di hêza Qendîlê de, min jiyana hevpar ava kir, lê mixabin piştî tenê du heyv û nîvan û jiyaneke pir demkurt, feleka Qadir çep bada, û Qadir tevlî refên karwanê nemiran bû û şehîd ket.

Cara duyemîn, 8 salan piştî şehîdketina Qadir, min di sala 2004’an (1383) tevî



pêşmergeyekî din ê Hizba Demokrat bi navê Zahid xelîlzade jiyana hevpar ava kir û berhema jiyana me jî keçek e bi navê Hêlîn”.

Ayişe Qadirî derheq bi vê pirsyarê ku çawa bû serbarê zehmetiyên ser rêya her xebatkarekî Kurd, te biryara beşdarî di xebata Kurdistana Rojhilatê de da, dibêje: “Min di demekê de biryar da ku bibim hevjîna pêşmergeyekî Hizba Demokrat ku, şarezayê tewahiya wan eger û nerihetiyan bûm ku têne ser rêya mirovekî xebatkar û şoreşvan. Lewra bi moralek bihêz li hemberî wan asteng û nerihetiyan sekinîm û berdewam hewla çareserkirina wan didim. Niha û piştî wan hemû salan jî çavnihêriya min ji Hizba Demokrat û hevjînê min ev e ku, heya bidestxistina armancên rewa ên gelê Kurd, tenê bo deqeyekê jî ji xebatê nesekinin û her di vê rasteyê de jî, ez jî wê hewil bidim ku bikarim keseke bi qazanc bim di pêxema gehiştina bi wan armancan”.

Ayişe Qadirî derheq bi roja xwe ya herî xweş a jiyanê, weha dibêje: “Dema bo mirovek siyasî bas tê ser bîreweriyên xweş, pir zehmet e ku bikare diyarî bike kanê kîjan bîrewerî xweş e, lê bo min tewahiya serkevtinên Partiya min dikevin nava cixza bîreweriyên xweş ên min de, û wê di Elboma jiyana min de her bimînin”.

Ayişe Qadirî herweha derheq bi roja herî nexweş a jiyana xwe weha dibêje: “Her weke mirov nikare bîreweriyên xweş ji bîr bike, bîreweriyên ne xweş û tal jî nahên jibîrkirin û di hizr û ramana mirov de dimîne, lewra bo min bîreweriyên herî nexweş ên jiyanê, veqetiyana hevrêyên min in, çi ewên ku şehîd ketine û çi evên ku bi her sedemekê ji refên Partiya Demokrat veqetiyane”.

Ayişe Qadirî bi vê gotinê dawiyê bi hevpeyvîna xwe tîne: “Piştî 20 salan jiyana siyasî, daxwaza min ji jinan û keçan û dayîkan ev e ku, heya dikarin asta rewşenbîrî û zaniyariya xwe bilind bikin da ku bikarin tevî serdemê niha xwe pêş bixînin. Herweha daxwaza min ji wan ev e ku hevkar û piştevanê xebata xwe ya rewa bi rêberiya PDKÎ bin, jiber ku ez xatircem im ku Partiya Demokrat cihê hemû qat û texeke civaka Kurdistana Îranê ye”.



**Rêzdar Zahid Xelîlzade digel hevjîna xwe rêzdar Ayişe Qadirî**

## Agirgirtina sobeya neftî bû sedema şewitîna mamoştayekî

**Ajansa Kurdpa: Di yek ji xwendingehên parêzgeha Azerbaycana Rojhilat de, sobe agir girt û ew yek bû sedema vê ku mamoştayek bişewite.**

Li gora nûçeyan, Roja Duşemiyê 9'ê Sermawezê, di xwendingeha Elîpûr di gundê "Qupuz"a şariştana Heştrûd, sobeya xwendingehê agir girt, û ew yek bû sedema vê ku dersxwan bikevin nav metirsiya şewitînê de.

Îbrahîm Selmanî xelkê gundê Qupuz got ku nebûna îmkanatên deştpêkî bona ragirtina agir di xwendingehê de, bûye sedema vê ku em ji kepsûlên agirvemirandinê ên gund bona vemirandina agir mifahê werbigrin.

Mihemedreza Selîmpûr bexşdarê nawendî ê Heştrûdê jî bi nûçegihaniya xwendekarên Îranê "ÎSNA" ragehandiye, ku Wezareta Perwedehiya Heştrûsê di vê bûyerê de tawanbar e, jiber ku serokê vê îdareyê li cem birêvebrê giştî ê nûsaziya xwendingehan gotibû ku di xwendingeha Heştrûdê de tu sobeyeke xeyrî ştandard tuneye.

Wî herwisa got ku ez nizanim ku çima Wezareta Perwerdehiyê daxwaz kiriye ku nabe ew bûyera bigihîje guhê ragehandinan.

Ew bûyera di demekê de rû daye ku



Wezîrê Perwerdehiyê Elî esxer Fanî roja borî ragehandibû ku: "Îsal 40 hezar polên xwendinê wê xatirê xwe ji sobeyên neftî bixwazin, û me wisa bernamerêjî kiriye, ku heta yek du salên din em şîstema germkirina xwendingehan ştandardsazî bikin, da ku dersxwan ji vê nîgeraniyê derkevin".

Heyamekê berî niha murteza Re'îsî serokê saziya nûsaziya xwendingehan ragehandibû ku %75 ji polên xwendinê ji sobeyên ştandar bêpar in, wate aliyê kên 200 hezar kes di bin metirsiya agirgirtina sobeyên neftî de dijîn".

## Du werzişvanên keç ên Kurd, pileyên qehremanî ya Îranê bi dest xistin

**Ajansa Kurdpa: Du keçên werzişvan ên bajarê Seqizê, di 20'mîn gerra kêbirkê yên "Têkwando" ya qehremaniya Îranê, xelatên zêr û boronz wergirtin.**

Li gorî nûçeya gehiştî Kurdpayê, di 20'mîn gerra kêbirkê ya Têkwando ya jinan, ya di temenên ciwan û mezinsalan de, 302 werzişvan pişikdar bûn û li ser aşta 31 parêzgehên Îranê bi rê ve çû. Tîma Têkwando ya Bajarê Seqizê bi nûneratiya parêzgeha Sinê, karî ku du xelatên Zêr û Boronz bo xwe misoger bike.

Di kêşa 46 kiloyan de "Esra Haşimî" karî piştî serketina bi ser hemû hevrikên xwe de, xelata zêr ji xwe re bibe û, "Rûnak Hesenzade" jî di kêşa 57 kîloyan de karî pileya sêyem ji xwe re misoger bike û xelata boronz ji xwe re bibe.



## Mamoştayekî Kurd li Îranê pileya herî baş ya lêkolînê bi dest xist

**Ajansa Kurdpa: Di çarçoveya pirograma "mamoştayê lêkoler" ji Wezareta Perwerdehiya Îranê,** mamoştayeke herêma Zîwiye li Seqizê bû mamoştayê herî baş li sertaserî Îranê de.

Li gora nûçeyan xelata hejdehemîn ya pirograma "maoştayê lêkoler" li Wezarea Perwerdehiyê bi mamoştayekî Kurd bi navê Wirya Newrozî tê dayîn.

Ew mamoşta li herêma Zîwiye li nêzî bajarê Sahêb li Seqizê mamoştayê xwendingeha deştpêkî ye.

Berhema vî mamoştayî di qonaxa yekem de, karîbû bibe berhema herî baş li Kurdiştanê.

Îsal 11 berhemên lêkolînê li parêzgeha Kurdiştanê beşdaî qonaxa sertaserî a Îranê bûn.

Pirograma mamoştayê lêkoler ji aliyê wan mamoştayan ve tê pêşkêşkirin, ku



hewla afirandina metodeke perwerdehiyê li xwendingehan de, û herwisa pêkanîna rewşa vegeşandina zaniştî ya mamoşta û dersxwan didin



## Bikaranîna madeyên hişber di cihên giştî de

**Ajansa Kurdpa: Di çend rojên derbazbûyî de komek Fîlm û wêne li torên civakî de hatin bilavkirin, ku ew yek nîşan dide ku niha di roja ronahî de, li cihên giştî mîna park û mêtro û çayxanan de bi eşkere madeyên hişber bi kar tînin**.

Nûçegehaniyên hikûmetî di vê derheqê de gotûbêjek tevî berpirsên pêwendiyên giştî ên kompanyaya Mêtro amade kiribû, û navbirê haşa ji vê tiştê dike û got: "Pirsa han dûr e ji raştiyan û bê şik ev wênane bo xirabkirina navê mêtro hatine bilavkirin".

Her di vê derheqê de "Murteza Telayî" cîgirê serokê şêvra bajarê Tehranê di malpera "înîştagiram"a xwe de nivîsandiye: "Mêtro baştrîn cih e bo serhildana xisarên civakî, û ev wêne ku hatine bilavkirin jî bi tevahî raştî ne, û bikaranîna Şîşe li mêtroyê de bûye pirsek asayî û berpirsên mêtroyê li cihê haşakirinê pêdvî ye ku daxwaza lêborînê bike û rêçareyeke baş bo arîşeya han bibîne".

"Armanê Êmroz" di raporekê de basa serhildana vê pirsê dike û dinivîse, Niha bikaranîna madeyên hişber di Îranê de bûye pirseke asayî û bi awayekî ku ev kesên ku tu zanyarî tevî madeyên hişber nebin, dikarin li cihên giştî zanyarî wergirin.

Bilavbûna nûçeya han di demekê de ye, ku Elî Xamineyî bo cara duyem nameyekê pêşkeşî ciwanên Rojavayî kiriye û ji wan re dibêje: "Welatê me dikere mînakek baş be bo jiyan û pêşeroja we û welatên Rojavayî be".

## Qedexekirina kincên kurdî û mehkirina şunasa Kurd di parêzgeha Sine de



**Îdrîs Stwet**

Kinc yek ji sereketirîn ferhenga her neteweyekê tê hesibandin û gelê kurd jî yek ji wan netewane ku xwediyê ferheng û kultûr û şunasa xwe ye, û Kurdan jî kincên Kurdî yên taybet bi xwe heye ku beşeke ji ferhenga Kurd.
Kincên kurdî yek li ciwantirîn kincên neteweyên Rojhilata Navîn û heya cîhanê jî tê hesibandin, û dîroka kincên kurdî pir kevnar e ku vedigere bo destpêka jiyana xelkê kurd li vê deverê da, ku heya niha ferheng û kultura xwe parastiye. Lê dijminên gelê kurd serbarê girtin û kuştin û dagîrkirina kurdistanê, ku bi awayekî sîstimatîk li hewla şovînîstî paşve neçûye û niha jî di hewl de ne ku kincên kurdî li îdareyên parêzgeha Sine qedexe bikin ku yek ji ferhengên bi nav û deng ên Rojhilata Navîn tê hesibandin.

Her di vî warî de her di destpêka hatine serkar a desthelatdarên rejîma komara Îslamî a Îranê, mafê kurd di îranê de hatiye binpêkirin, û hewil dane weke stratejîkekek demdirêj û bi awayekî micid bo mehkirina şunasa netewî û mehkirina ferhenga kurd û netewên din ên Îranê û zalkirina ferheng û ziman û kulruta Farsan bi ser netewa kurd û netewên din ên Îranê de zal bikin,



û ferheng û kultura netewên din ên Îranê meh bikin û bo vê kerê jî ji hemû rêyên perwerde, kanalên televîzyonî ên parêzgehan, radyo û li çendîn metodên din mifah wergirtin heya ku piroseya mehkirina ferheng û kultura kurd û netewên din ên Îranê cîbicî bikin ku heya niha jî dirêjî heye.

Rejîma komara Îslamî a Îranê xelkê Îranê bitaybetî neteweyên bindest di rewşa birçî bûnê, giranî û bêkariyê de dihêle, û serbarê vê jî girtin, kuştin, îşkencekirin, tûşkirina ciwanan bi medeyên hişber, givaşxistin li ser xwendekaran di zanîngehên Kurdistanê de destek baş heye.

Berê li çendîn cihan wek "girtîgeh û zanîngehan" bitaybetî xwendekarên zanîngehên parêzgehên Rojhelata Kurdistanê, ji aliyê berpirsên Spaha Pasdarên rejîma komara Îslamî a Îranê ve gef li wan hatiye kirin ku nabe di zanîngehan de kincên kurdî li xwe bikin wek "zanîngeha Azad a Pîranşar û girtîgeha Urmiyê" de ku lixwekirina kincên kurdî hatibûn qedexekirin, û çendîn car jî di Saziya Deng û Reng a Îranê de jî, bêhurmetî bi kincên Kurdî hatiye kirin, û her di vê dawiyê de jî li bajarê Urmiyê bêhurmetî bi ciwanekî hatibû kirin ku kurd bû, û bi kincên kurdî çûbû lîstikgehê.

Niha serbarê mîlîtarîzekirina kurdistanê ji aliyê rejîmê ve û nedana derfeta geşekirina ferheng û kultura xelkê kurdistanê, bi xweşî ve piraniya xelkê kurdistanê kincên kurdî li xwe dikin û li gor amaran %80 kincdûr (xeyat) di kurdistanê de kincên kurdî didirûn û parastina ev ferheng û kulture jî beşeke zaf ya wê vedigere ser çalakvanên ferhengî û civakî ên navxweyî û partên siyasî ên netewî ên kurdistanê ku ji curbicur wek rêya TV û malper û torên civakî ve hatiye encamdan.

## Pêgeh û girîngiya jinan di şûnwarên 2800 salî ên bajarê Îzê de

**Ajansa Kurdpa: Şikevta pîroz a "Tarîşa" ya bajarê Îzê ku yek ji şûnvarên kevnar ên serdemê Îlamiyan e, dîroka wê vedigere bo 2800 sal berî niha.**

Nûçe û raporên belavbûyî bas ji vê yekê dikin ku wêneyên rind û ciwam ên jinan di nîgarkenên (Şûnvar) peristgeha Tarîşayê, îşarş bi pêgeh, girîngî û rola jinan û berhevbûna wan di karûbarên ayînî û civakî di serdemê Îlamiyan de, wate berî serhildana olê Îslamê dikin.

Ligorî rapora Mîrata Kultur a Erdeşîr Salihpûr nivîskar û şirovekarê pirtûka Tarîşa, serbarê îşarekirina bi dîroka çend hizar salî ya vê herêmê dibêje ku,



nîgarken anku kesê peykertaş bi vekêşana wêneyek ciwan û balkêş ji "Hanî" Şayê herêma "Ayapîr" (Îze), "Şûtir" û wezîrî wî û herweha "Amanta" ya jina Hanî Şa, di du nîgarkenên cuda de tê dîtin, û ev yek rêz û hurmetên malbatên deverê bo vê cihê pîroz diselimîne.

Navbirî herweha dibêje ku du kevirên din ên nivîsandî di vê şikevtê de hene ku, û kesê nîgarkêş bi nivîsandina "Mîxî" û bi awayekî hûr basa vê cihê pîroz û xwedayên Îlamî li ser kevir hilkoliye û, hemû kesên nava wêneyê de jî li ser piyên xwe sekinîne û destên xwe li ser sîngên xwe danîne û di rewşa "Îbadet"a xwedê û bi piyên pêxwas de derdikevin.

## Gotinên Navdaran



A: FIRAT CEWERÎ

Yên ku ji bo hinin din bigirîn ji çavan dibin.
**Tolstoy**

Çav, ji bilî xwe her tiştî dibîne.
**Thomas Fuller**

Zimanê evînê di çavan de ye.
Phineas Fletcher

Çav, pencereya ruhê mirovan e.
**Du Bartas**

Çav ji xwe, guh jî ji yên din bawer dike.
**Gotinek Almanan**

Mirov dikane bi çavên girtî jî bibîne.
**Coleridge**

Hêsirên çavan ziwa dibin.
**Dostoyevskî**

Ez li paşeroja xwe dinihêrim û hatina xwe dibînim.
**Patrice Henry**

Dîtina îro ji dîtina pêşerojê hêsantir e.
**Franklin**

Piştî ku xortaniya me diçe, em paşê jê hez dikin.
**Holderlin**

Piraniya mirovan ku pîr dibin xortaniya xwe ji bîr dikin.
**Boccaccio**

# Zimanê Kurdî

## Xwarin û Vexwarinên Me











Ez nan dixwim.

Tu penîr dixwî.

Ew mast dixwe.

Em zebeş dixwin.

Hûn hingiv dixwin.

Ew mehîrê dixwin.


Ez avê vedixwim.


Tu şîr vedixwî.


Ew dew vedixwe.


Em çayê vedixwin.


Hûn avmêweyê vedixwin.


Ew xweşavê vedixwin.

# Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

1- Qeşê rih dirêj.
- Tişt û mişt, çu li wêra he runişt.
- Xişt û xişt/mişt çu dira/wêra he runişt.
- Kir xişt e xişt, çû dira he runişt

2- Mêzera Sultanî, bê dest û pê çu ser banî.
- Tiştê min tiştanî, ne pê pêvene ne panî, bi
xwe diçite ser banî.
- Him him e, dîwar sim e. (*bo darukey jî tê gotin)

3- Birinca bi şel û şepik.

4- Uşe keru, bi dû min ra weru.
- Zivistanê bi şul, havînê betal.
- Pê pano, li ser bano.
- Çû kero, hevsar zero, li du min wero.
- Ne ker e, ne maker e, hefsarî bide sere, hêdî hêdî li berî herre.
- Helbet helbet, ava li bana şilqa vedidet, Şileymûnkê kata ji xwe didet.

5- Ji dûr ve hindî Gayekiye, ji nêzik ve hindî Çiyayekiye.
- Mûyê/pûrtê kara, li ser dara.
- Tiştekê hey heku dinivit hindî gaye, heku radibit hindî çiyaye.
- Dipêçî, barê gaye,vedinî wek çiyaye, bi sere
de tê baran û baye, girêdane bi werîsaye, malbat tev libin razaye.
- Mûyên k`aran, li ser daran, di bin de distirin bi hezaran.

6- Serevraz kî dê vala bit, sernişîv kî dê tijî bit.
- Ser spiye, ne meleye, pê paniye ne deveye. (!)
- Demê sernişîv diken tijî dibit

7- Hudhude harbû, Reşwêl e lê siyarbû.
- Helhele har e, reşkele siyar e, dûvdirêjk xizmetkar e.

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



# Agirî

◆ Rojnameya "Agirî" di van malperên jêrên de bixwînin:
◆ www.Kurdistanmedia.com
◆ www.Agirimedia.org
◆ rojnamaagiri@gmail.com
◆ www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (267)

## Mirina berdewam ya girtiyên nexweş di girtîgehên Îranê de

**Kurdistanmedia: Salane hejmarek ji girtiyên siyasî, ji ber şertên nebaş ên tendurustiyê di girtîgehên rejîmê de, tûşî nexweşiyên giran dibin ku ev jî dibe sebeba mirina wan.**

Li gor rapora ku gihaye malpera Kurdistanmedia, pêrenegihîştina bi girtiyên siyasî di girtîgehên rejîma Îranê li warê tendurustiyê, di rewşek xirab û metirsîdar de ye. Berpirsiyarên girtîgehan bi awayek sîstimatîk, siyaseta pêrenegihîştina bi girtiyên siyasî li warê saxlemî û tendurustiyê de peyrew dikin.

Sedemên ku girtiyan rastî nesaxî û li encam de jî mirinê dike, nerîna ewlehî û siyaseta sîstimatîk ya rejîmê ye li dor girtiyan ku ji riyên cur bi cur ên weke pîskirina jîngeha girtîgehan, neşandina bîjîşkên pispor bo girtîgehan û herwiha rênedana bi veguhastina girtiyan ji bo navendên dermanî yên derveyî girtîgehan, nedayîna kincên taybet ên nexweşan, kelebçekirina dest û lingên wan, biha û giranbûna dermanan û … hwd dimeşîne.

Dermankirina van girtiyan di rewş û jîngehek wusa ya girtîgehan de bi awayek destpêkî û bêy veguhastina bi nexweşxaneyên derweyî girtîgehan tê encamdayîn û heya niha nûçeyên zaf lid or mirina hejmarek ji van girtiyan bi sedema derengmayîna tedawî û dermankirinê hatine weşandin ku mirov dikare îşare bi Huda Sabir, Muhsin Dukmeçî, Hesen Nahîd, Elborz Qasimî, Mihemed Himadî û Efşîn Usanlû bikin.



Xemsariya berpirsên bi nav dadweriya rejîmê û siyaset û reftarên rejîmê li dor girtiyên siyasî, bi yek ji nîgeraniyên herî mezin ên malbatên wan girtiyan û çalakvanên mafên mirovan tê hesbandin.
Eva jî di halekê de ye ku rejîma Komara Îslamî serbarê înkarkirina hebûna girtiyên siyasî di Îranê de, her sal ji aliyê rêxistinên navnetewî ên taybet bi mafên mirovan ve tê pirotesto kirin, û niha jî mixabin çendîn girtiyên siyasî di girtîgehên rejîmê de ji ber pêrenegihîştina sîstimatîk bi rewşa wan, bi mirinê re berbirû bûne.

## Firotina pênûsan, jiyana penaberekî Sûriyê bi tewawî guhert

**Penaberê ji Sûriyê ku berî demekê keçika xwe dixiste hembêza xwe û li kolanên Libnanê qelem difrotin, û bala her kesî kişandibû ser xwe, niha rewşa wî gelekî cuda ye. Êdî qeleman nafiroşe, êdî karsazekî naskirî ye û xwediyê 3 cihên kar e.**



Jiyana Penaberê bi navê Ebdulhelîm EL -Ettar, bi çend qeleman û sûretekî hate guhertin. Bi belavkirina wî sûretî, ji xwe re di internetê de kempeyna alîkariyê vekir, û 191 hezar Dolar kom kir. Penaberê 33 salî, destpêkê firinek vekir, piştre jî 2 cihên din vekirin. Niha 16 penaberên Sûrî li cem wî kar dikin.Dema ku qelem difrotin, rojnamevanekî Norwêcî yê internetê ew li kolanê dîtibû, sûretê wî di twîttera xwe de belav kiribû û gotibû qelemekê bibe, piştre ji wî re kempeyna alîkariyê vekiribû, destpêkê 5 hezar Dolar, piştre jî di nava 3 mehan de 188 hezar û 685 Dolar hatibûn komkirin. Piştî ku pereyên wî çêbûn, ji jina xwe cuda bû.

## Li Kolombiya gundiyekî di nav zeviya xwe de, 600 milyon Dolar dît



**Li Kolombiya gundiyek di nav zeviya xwe de, 600 milyon dolarên nû, ku di bîdonekî şîn de bûn dibîne, Ku ew pere di bin darekê de hatibûne veşartin.**

Li gor malpera Brîtanî gundiyê bi navê 'Xose Mariana', ji ber ku gellekî hejar bû, hikûmetê 3 hezar Dolar dabûne wî ji bo ku zeviya xwe biçîne. Tê texmînkirin ku ew pere yên mafyaya kolombî bin. Ew gundî bi wan pereyan û bi hevkariya hikûmetê, wê pirojeyên aborî û civakî ava bike.

## Îraq dixwaze bilez hêzên Turkiyê ji Îraqê derkevin

**Dewleta Îraqê daxwaz ji Turkiyê kiriye ku bilez hêzên xwe ji axa wî welatî bibe derve.**

Li gorî rapora televîzyona El-Erebiye, roja Şemî 05.12.2015'an nivîsîngeha serokwezîrên Îraqê di daxûyaniyekê de bilav kiriye, ku hêzeke taybet û hejmareke Tangên spaha Turkiye hatine nava parêzgeha Mûsilê.

Di daxûyaniya nivîsîngeha Heyder Ebadî de hatiye ku hizra han ji aliyê Enqerê ve bêhurmetî kirine bi serweriya Îraqê, û binpêkirina eşkere ya binemayên hevsînoriyê.



Daxûyaniya nivîsîngeha Heyder Ebadî li ser vê baweriyê ye ku hêzên Turkiyê bê vê ku mohleta daxwazê li hikûmeta nawendî a Îraqê wergirin hatine nav wî welatî.

Eva di demekê de ye ku Osêyl Nocêfî, parêzgarê berê ê Mûsilê dibêje, hêzên Turkiyê di serdemê serokwezîriya Nûrî Malikî û li ser daxwaza dewleta Îraqê li derdora Mûsilê de cihgirtî bibûn.
Hinek şirovekar di vê derheqê de dibêjin ku ev helwesta nû a karbidestên Îraqê, wek serokwezîr û serkomar di çarçoveya helwestên nû ên Îranê de ne, derheq Turkiyê.

Ev helwesta Îraqê di demekê de ye ku piştî destbiserdagirtina beşek ji axa Îraqê ji aliyê girûpa terorîstî a DAÎŞ'ê ve, hêzên Spaha Pasdarên rejîma Îranê, bi fermandehiya Qasim Sulêmanî, (ku bi berçav şer tevî DAÎŞ'ê dikin), hertim amade ye ku destêwerdana eşkere di karûbarên serbazî û siyasî a Îraqê bike, lê karbidestên Îraqê kar û kiryarên Îranê bi bêhurmetî bi binemayên hevsînoriyê nezanîne.